HERDEM RASTÎ

# BasNûçe

ISSN 2148-5305

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 98 11 - 17 Avrêl 2016 basnuce.com

Derwêşê hemdem



R16

# Minbic bo YPG'ê, Cerablûs bo Tirkiyeyê








Ji bo Xeta Minbic - Cerablûsê ku Tirkiyê wek xeta sor danîbû pêşiya PYD'ê piştî serdana Erdoğan a Washingtonê formulek hatiye dîtin. Li gor agahiyan Raye-darên Qesra Spî, Minbicê bo kurdan û Cerablûsê jî ji Tirkiyeyê re hiştine.

Li gor vê formula Amerîkayê Minbic wê aliyê YPG'ê ve û Cerablûs jî wê ji aliyê Artêşa Azad a Suriyê ve bê kontrolkirin. Ev formul di serdana Serokkomarê Tirkiyeyê Erdoğan ya Washingtonê de ji aliyê rayedarên Qesra Spî ve hatiye pêşniyazkirin û aliyan vê jî vê yekê erêkirine.

R02-3

**Îstîmlaqkirina Sûrê ne hiqûqî ye** R14

**Kurdî; yek ziman dû alfabe** R13

**Weşanxaneyên cihanê li Hewlêrê** R12

**Washington navbeynkarê Hewlêr û Bexdayê ye** R06-7



Dr. Kemal Kerkûkî:

## Iraq bi xeletî hatiye sazkirin, nabe ew xeletî berdewam bike

"Ez bi xwe xwe weke hemwelatiyê Iraqê hesab nakim. Ez niha li vir şerê DAIŞ'ê dikim. Ew şerê min ne ji bo Iraqê ye. ji bo rizgariya Kurdistanê ye. Eger ne ji bo gelê kurd be û ji bo Kurdistanê be, ez niha li vir nasekinim. Heta niha em li Iraqê tûşî zulmê bûne û me zulm dîtiye.

R08-9

Mesûr Barzanî:

## Kurd ji bo hemû cîhanê bi DAIŞ'ê şer dikin

"Hêzên Pêşmerge yên Kurdistanê her çend 4 meh in mûçeyên xwe vernegiritine jî, lê hîn jî li bereyên herî pêş û çeperên herî pêş li dijî DAIŞ'ê şer dikin. Ji ber ku Pêşmerge baweriya xwe bi armancên xwe heye."



R02-3

Li Rojava formula Washingtonê

# Minbic bo YPG’ê, Cerablûs bo Tirkiyeyê

Siwar Bedirxan

Niqaşên li ser pêşeroja Xeta Cerablûs - Merayê didomin ku ev xet bajarên Kobanê û Efrînê digîjîne hevûdû. Enqerê heta niha bidestxistina vê xetê wek xêza sor danînbû pêşiya YPG’ê û hêzên kurd yên nêzî ser sînor bombardiman dikir. Niha li gor agahiyan di navbera aliyan de derbarê vê pirsgirêkê de lihevhatinek peyda bûye. Li gor vê yekê Minbic wê aliyê YPG’ê ve û Cerablûs jî wê ji aliyê Artêşa Azad a Suriyê ve bê kontrolkirin. Ev formul di serdana Serokkomarê Tirkiyeyê Erdoğan ya Washingtonê de ji aliyê rayedarên Qesra Spî ve hatiye pêşniyazkirin û aliyan vê jî vê yekê erêkirine.

Serokkomarê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan di serdana xwe ya Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA) de bi Wezîrê Karên Derve yê DYA’yê Kerry û Serokê DYA’ê Obama re pêşeroja xeta ku dikeve navbera bajarên Kobanê û Efrînê yên Rojava, gotûbêj kiribû. Tirkiye ji Çileya 2015’an û vir ve li ser sînorê Rojava û Sûriyê dixwaze herêmeke tampon ku 90 km berfireh û 20 km jî kûr e ava bike. Enqerê bi wî awayî dixwest li ber gihandina xaka Rojavayê Kurdistanê bibe asteng. Ji ber vê yekê jî bi taybetî li Minbic û Serêkaniyê artêşa tirk baregehên YPG’ê bê navber dida ber topan.

Hate ragihandin ku Serokkomarê Tirkiyê di gera xwe ya DYA’yê de daxwaz kiriye ku li Xeta Cerablûs - Minbic - Mera piştî ku ji DAIŞ’ê bê stendin, yekîneyên tirkmen û Artêşa Azad de bên bicihkirin. Lê belê tê eşkerekirin wê ku DYA piştgiriya xwe ya ji bo YPG’ê li dij DAIŞ’ê berdewam bike û daxwazên Tirkiyê jî berhev bike. DYA xwe amade dike ku hem ji aliyekê ve piştgiriya xwe ya bo YPG’ê bidomîne û ji aliyê din ve jî daxwaza Tirkiyê ya “herêma tampon” qebûl bike.

Li gor zanyariyên BasNûçe’yê ku ji çavkaniyên li herêmê bidestxistî ne, DYA’yê formulek nû pêşniyar kiriye. Li gor Formula DYA’yê li xeta ji Ezazê heta Cera-blûsê wê yekîneyên Artêşa Azad ku ji ereb û tirkmenan pêk tê, bicih bibin. Hêzên tirkmen yên nav Artêşa Azad ku Tirkiye piştgiriya wan dike wê Cerablûs û başûrê wê kontrol bikin. Li hemberî bicihkirina hêzên tirkmen wê li ser sînorê Cerablûs – Sûriyê, Hêzên Sûriya Demokratîk (HSD) ku YPG jî di nav de ye wê Minbicê ji DAIŞ’ê bistînin û ber bi Efrînê ve pêşve biçin. Bi vî awayî hem “xeta sor” ya Tirkiyê nayê derbaskirin û hem jî stratejiya PYD’ê ya yekgihandina bajarên kurdan wê pêk were. Piştî vê lihevkirinê li heremê jî li gor vê yekê operasyon destpêkirin. Artêşa Azad ji Ezazê û YPG jî ji Minbicê dest bi êrişa ser hêzên DAİŞ’ê kirin û li heremê operasyon û şer berdewam e.

### Hiso: Di mijara Minbicê de me bi mitefikên we re li hev kir

Endamê HSD û Berdevkê Çapemeniyê ya Ceyş el Siwar Ehmed Hiso ji Bas-Nûçe’yê re nexşerêya DYA, Tirkiye û YPG’ê ya li hember DAIŞ’ê nirxand. Hiso operasyona bajarokê Minbicê piştrast kir û eşkere kir ku HSD xwe amade dike ku Minbicê kontrol bik û ber bi Efrînê ve korîdorekî vebike. Hiso radigihîne ku wan bi hêzên hevpeyman re li ser têkoşîna li dij DAIŞ’ê hevdîtinên nû kirine û diyar dike ku li ser Xeta Cerablûs - Minbic û Ezazê geşedanên leşkerî yên nû wê rû bidin. Hiso wiha dibêje: “Minbic devereke girîng e. Paqijkirina DAIŞ’ê ji vê herêmê wê DAIŞ’ê gelek qels bike. Ji bo ku têkiliyan wan ya bi Reqqayê re bê qûtkirin, divê operasyona Minbicê pêk were. Mitefîkên me jî di heman fikrê de ne. HSD’ê ev heyameke operasyonên xwe rawestandibûn, niha wê dîsa des tbi operasyonan bike. Pêşeroja Cerablûsê jî bi dem re em ê bi mitefikên xwe re biax-ivin.”

### ‘HSD ber bi Minbîcê, Artêşa Azad jî ber bi Cerablûsê ve pêşve diçe’

Rojnameger Mohammed Elî ku operasyona HSD’ê ya Minbicê û ya Artêşa Azad a Cerablûsê dişopîne, derbarê geşedanên li herêmê agahî dan BasNûçe’yê. Elî destnîşan dike ku Artêşa Azad di maweyê 3 rojan de 20 kîlometran pêşve çûye. Her wiha Elî radigihîne ku HSD’ê amadekariyên xwe temam kirine û yekîneyên xwe li Bendava Teşrînê û derdora wê bicihkirin e. Elî diyar dike ku hevpeymana li dij DAIŞ’ê deverên ku operasyon wê werin pêkanîn, bombebaran dike û got ku operasyonên li Minbic û Mareyê zêde û gurbûne.

Ji hêla din ve hatibû eşkere kirin ku bi pêşengiya HSD’ê ji bo Minbicê konseyên leşkerî û sivîl hatine avakirin.



Ji bo Xeta Minbic - Cerablûsê ku Tirkiyê wek xeta sor danîbû pêşiya PYD’ê piştî serdana Erdoğan a Washingtonê formulek hatiye dîtin. Li gor agahiyan Raye-darên Qesra Spî, Minbicê bo kurdan û Cerablûsê jî ji Tirkiyeyê re hiştine.

Li gor vê formula Amerîkayê Minbic wê aliyê YPG’ê ve û Cerablûs jî wê ji aliyê Artêşa Azad a Suriyê ve bê kontrolkirin. Ev formul di serdana Serokkomarê Tirkiyeyê Erdoğan ya Washingtonê de ji aliyê rayedarên Qesra Spî ve hatiye pêşniyazkirin û aliyan vê jî vê yekê erêkirine.



Çavkaniyên nêzî PYD’ê ragihandibû ku Konseya Leşkerî ya Minbicê ji Bendava Tişrînê ber bi bakûr ve diçe û ji şervanên ku dix-wazin Minbicê kontrol bikin pêk tê. Heman çavkanî radigihînin ku ji bo Minbicê Konseya Îdarî jî wê were damezrandin. Li gor nûçeya ANHA’yê kurd û tirk-menên li vê herêmê radigîhin ku Konseya Leşkerî ya Minbicê bi agahiya wan û ya DYA’yê hatiye pêkanîn.

### İdris Nassan: Operasyonên leşekrî wê pêk werin

Ji Rêveberên Kantona Kobanê yê berê Îdrîs Nassan di derbarê operasyonên Minbic û Cerablûsê de ji BasNûçe’yê re eşkere kir ku YPG û HSD’ê bi DYA û Rûsyayê re li ser operasyonên li dijî DAIŞ’ê axivîn e. Nassan dibêje ji bo ku DAIŞ ji Rojava û Sûriyê bê derxistin, operasyonên leşkerî wê bidomin û destnîşan dike ku Minbic devereke stratejîk e û piştrast kir ku YPG xwe ji operasyonê re amade dike. Nassan baldikşîne ser serdana Serokkomarê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan a Washingtonê û dibêje ku ji bilî hêzên navnetewî, hêzên herêmî jî qebûlkirine ku PYD li Rojava hêzeke girîng e. Nassan diyar dike ku divê Tirkiye dev ji dijayetiya PYD û YPG’ê berde û got, “YPG ji bo tu kesê ne gef e û herêmê li dijî komên se-lefî diparêze. Divê ev ji aliyê Tirkiyê ve jî bê qebûlkirin.”

### Ji Heysem Menna îstîfaya bi berteka federasyonê

Hevserokê Meclîsa Sûriya Demokratîk (MSD) Heysem Menna ragihand ku ew piştgiriyê nade Sîstema Federal a Demokratîk ya Rojava – Bakûrê Sûriyê û îstîfa kir. Îlankirina federasyonê ji aliyê PYD’ê ve di Meclîsa Sûriya Demokratîk de bû sedema qrîzê. Hevserokê MSD’ê yê ereb Heysem Menna eşkere kir ku dest ji peywîrê berdaye. Menna bertek nîşanî ragehandina federasyona ku li bajarê Ro-java Qamişlo hatibû daxuyandin, da û got, “Heta ku deklarasyona 17’ê Adarê neyê betalkirin, ez venagerim vê peywîrê.” Ji aliyê din ve endamên MSD’ê ku li Qamoşlo civiyan, eşkerekirin ku Sîstema Federal ya Demokratîk a Rojava – Bakûrê Sûriyê nas kirine. Projeya sîstema federalî, di 16-17’ê Adarê li bajarokê Rimêlan a Qamişloyê hatibû ragihandin.

### Şerwan İbrahim: Divê ENKS û TEV-DEM bi hev re tevbiger e



Siyasetmedarê Rojavayî Şerwan Îbrahîm îstîfaya Heysem Menna û olanên rage-hadindana federasyonê ku PYD’ê îlankiriye, ji BasNûçe’yê re nirxand.

Îbrahîm dibeje ku êdî ne pêkan e Sûriye bigihije sîstemeke navendî. Li gor Îbrahîm ENKS û PYD daxwaza federasyonê dikin û divê nunerên van herdu partiyan bi hevre tevbigerin. Îbrahîm diyar dike ku opozîsyona Sûriyê daxwazên ENKS’ê û rejîma Sûriyê jî daxwazên PYD’ê nabîne û dibêje ku ji bo parastina federasyonê û ji bo temsîlkirina kurdan divê ENKS û PYD dawî li nakokiyên xwe bînin. Îbrahîm amaje bi wê yekê kir ku li Rojava hin kes berjewendiyên netewî qûrbanî berjewendiyên partiyan dikin û wiha axivî: “Rabirdûyeke siyasî ya bi-serpêhatî heye. Divê berjewendiyên netewî qûrbanî berjewendiyên partiyan neyên kirin. Hin siyasetmedarên kurd vê yekê dikin. Heta ku ev bidome dijwar e ku destkeftiyan biparêzên.”

### Şêx Meqsûd di bin dorpêçê de ye

Taxa Şêx Meqsûd a Helebê ku ev demeke dirêj e di bin êrişên komên selefî de ye, dîsa êrişên dijwar yên El Nûsra û Ehrar el Şamê de ye. Berdevkê Mala Gel a Şêx Meqsûdê Cemîl Kurmênc ji BasNûçe’yê re eşkere kir ku Lîwaya Siltan Mûrad, Ehrar el Şam, Lîwaya el Fetîh, Ceyş el Mucahiddin û El Nûsra êrişî taxê dikin û got ku bi dehan sivîl hatine birîndarkirin. Kurmênc radigihîne ku komên selefî gazên kimyewî bikar tînin û diyar dike ku derfeta dermankirina bidehan birîndarên zarok û jin tune ye û rêyên taxê di bin kontrola komên selefî de ne. YPG’ê jî di derbarê pevçûnan de daxuyaniyek da û eşkere kir ku bersiva êrişên komên selefî hatiye dayîn û 36 kes hatine kuştin.

### Dibo: Hilbijartin wê bên boykotkirin

Ji hêla din Sûriya ku ev 6 sal in di nava şerekî navxweyî de ye, amadekariyên hil-bijartinên parlamentoyê ku wê 13’ê Avrêlê pêk werin dike. Ji bo Meclîsa Sûriyê ku 250 parlamanter ku ji 14 herêman tên hilbijartin wê bê kirin. Hilbijartin 4 sa-lan carekê tê kirin. Tê çaverêkirin ku sindoqên hilbijartinê wê li deverên di bin kontrola rejîmê de ne bên danîn ku tenê sadê 16’ê axa Sûriyê di destê rejîmê de ye.

Di heman demî de mijara bicihkirina sindoqan jî li Rojava tê niqaşkirin. Ji rayedarên PYD’ê Sîhanok Dibo bersiva pirsên BasNûçe’yê da û da ragihand ku PYD wê hilbijartinan boykot bike. Dibo eşkere dike ku hilbijartin rejîma Sûriyê eleqedar dike û kurd wê hilbijartinan boykot bikin. Dibo her wiha destnîşan dike ku tu pêwendiya Rojava bi rejîmê re tune ye û di rêya mafê diyarkirina çarenûsa xwe de dimeşe. Dibo bibîrdixe ku PYD’ê hilbijartinên 2014’an boykot kiribû û diyar dike ku tu meşrûiyeta rejîmê li Rojava tune ye û rejîma Sûriyê sedemeke qeyrana Sûriyê ye.

### “DYA piştgiriyê dide me”

Sîhanok Dibo li ser federasyonê jî dibêje ku sîstema federal a ku ji aliyê PYD’ê ve hate îlankirin, di demek nêz de wê piştgiriyê bistîne. Dibo radigihîne ku Rûsya û DYA ne tenê mitefîkên YPG’ê yên leşkerî ne, got ku Rûsya ji bo ku PYD di civîna Cenevreyê de cih bigire daxwaz ji dîplomasiya navnetewî kir û eşkere dike ku ev yek wê encam bide. Dibo destnîşan dike ku DYA bi awayekî eşkere alîkariya PYD’ê dike û wiha diaixife: “DYA bi alîkariyên xwe yên leşkerî, piştgiriya pêwîst dide me. Tekane hêza ku DAIŞ’ê têk birî em in. DYA eşkere alîkariyê dide me. Wê pêwendiyên me bidomin.”

### De Mistura di gera çareseriyê de ye

Tê plankirin ku hevdîtinên di navbera rejîm û opzîsyona Sûriyê de di 11’ê Avrêlê ji nû ve destpê bikin. Nunerê taybet ê Sûriyê yê NY’yê Staffan de Mistura beriya civîna Cenevreyê ku wê 11’ê Avrêlê de pêk were, li Moskovayê bi Wezîrê Karên Derve yê Rûsyayê Sergey Lavrov re hevdîtinek pêk anîbu. De Mistura wê biçe Tehran, Şam, Enqere û Riyadê jî. Lavrov eşkere kir ku Rûsya piştgiriyeke teqez dide hewlên De Mistura yên ji bo çareserkirina qeyrana Sûriyê û got ku divê he-vdîtinên Cenevreyê bi awayekî berfireh û yekser bin. De Mistura jî li ser civîna Cenevreyê diyar kir ku ji bo serkeftina hevdîtinên Cenevreyê xala herî girîng domandina agirbestê ye.

Ji gera yekem ya hevdîtinên Cenevreyê ku 14-24’ê Adarê pêk hatibûn, encameke şênber bidest neketibû. Tê çaverêkirin gera duyem ya hevdîtinan di 11’ê Avrêlê de pêk bên, lê belê şandeya ku rejîmê temsîl dike ji ber hilbijartinên parlamen-toyê piştî 14’ê Avrêlê wê bigihije Cenevreyê.

# Aştî di kemîna îmha û berxwedanê de

Yeter Polat



Banga çekberdanê ya Davutoğlu ku li Diyarbekir bo PKK'ê kir, herçend leqayê helwesta tund ya Erdoğan hat jî diyar dike ku di ajandaya hikûmetê de careke din vegera proseya aştiyê cih digre.

Li Rojava lihevkirina navbera Tirkiye Amerîka û PYD'ê de derbarê kontrolkirina herema Cerablûs - Mareyê de û gotegotên careke din destpêkirina hevdîtinên Öcalan û rayedarên devletê, wek piştpirdeya daxuyaniya Serokwezîr tê xwendin. Lê belê ewçend jî rayedarên herdû aliyan di daxuyaniyên xwe de heta niha peyamên tûj didin raya giştî.

Daxuyaniya Serokwezîr Ahmet Davutoğlu ya ku digot, "Bila PKK vegere mercên pêşiya Gulana 2013'ê wê proseya aştiyê destpê bike" careke din di rayagiştî de hêviyên 'aştiyê' şîn kir. Lê ev hêvî, bi daxuyaniyên tund ên Serokkomar Recep Tayyip Erdoğan, di nava demek kurt de bidawî bûn. Li hember gotinên Erdoğan ku digot, "heta terorîstek jî bimîne wê tekoşîn bidome", Murat Karayılan û Cemil Bayık jî heman tundiyê bersiv dan û gotin "wê berxwedan bidome."

Her çend rayagiştî li ser wê nêrînê de zelal e ku bi pevçûnan çareserî nabe jî, alî rijdin li ser tundiyê û banga "şer" li aligirên xwe dikin. Aliyên siyasî banga gotûbêj, lihevkirin û rêkeftinê dikin, lê hikûmet û rêveberên PKK'ê berovajiyê van bangan bê çareseriyê disepînin û guhên xwe ji bangên aştiya civakî û amarmiyê re digrin.

Daxuyaniyên Davutoğlu yên derbarê bi rêbazên demokratîk çareseriya pirsa kurd de, di nav rayagiştî de bû sedema ji nûve vejandina hêviyên vegera siyasetê jî. Lê nayê zanîn ka wê kengî ev yek pêk bê. Heman awayî, mijarek din ê ku girîng tê dîtin ew e ku wê careke din Öcalan çawa bê nav proseyê û wê sekna wî çawa bigre?

### Şertê destpêkê yê hikûmetê çekdanîn e

Her du alî jî bo çareseriya pirsa kurd de xwîn raweste, çek bê deng bibin û bi rê û rêbazên siyasî çareseriyek mayînde pêk bê, şertan didin pêş. Hikûmet dixwaze PKK çekan dayne û derkeve derveyî sînoran û dibêje ku wê bi vî awayî pevçûn rawestin û aramî bê navçeyê. Rêveberên PKK'ê jî dibêjin ku heger goşegiriya li ser Öcalan rabe û Öcalan di proseyê de weke berpirsê danûstandinan bê naskirin wê hingî xwe nêzîkê agirbestê bikin.

Aliyê hikûmetê amaje bi wê yekê dike ku bi çek an jî bê çek PKK ne "otorîte" ya tekane ye û dibêje, PKK'ê di meha tîrmehê de bi kuştina her du polîsên li Pîrsûsê proseya aştiyê jinav bir. Herwiha hikûmet bûyerên Kobanê jî weke sedem nîşan dide û diyar dike ku ji bo pêşiya van bûyeran bê girtin, wan biryara berqerarkirina aramiya civakî, dane. Piştî van geşedanan proseya aştiyê hatibû rawestandin, di vê çarçoveyê de tevdîrên weke Yasaya Ewlekariya Nevxwe hatibû derxistin û hevdîtinên ligel Îmraliyê hatibûne rawestandin.

### Divê PKK li derveyî sînoran jî nebe tehdîd

Hefteya borî Davutoğlu li Helsînkî bersiv da pirsên rojnamevanan û di nava gotinên xwe de mercên nû jî destnîşan kir. Li gor van daxuyaniyan; ji bo ji nûve proseya siyasî destpê bike, pevçûn rawestin û aramiya civakî pêk bê, çekdanîna PKK'ê têrê nake, herwiha ji bo hebûna PKK'ê ya li Herêma Kurdistanê û Sûriyê jî pêwîstî bi tevdîran heye.

Rojnamevan Ali Bayramoğlu di gotara xwe de cîh dide daxuyaniyên Davutoğlu ku dibêje: "Heta ku bi awayek mayînde çekan nedaynin, ne gengaze ku ti geşedanek hebe. Divê teqez çekan daynin. Eve şertek pêşîn e. Heger êdî ji Tirkiyê re nebin gef, hingî dibe. Herwiha divê, hebûna wan a li Iraq û Sûriyê jî li ser Tirkiyê nebe gef. Ji bo Tirkiyê beriya her tiştî, bi awayek teqez danîna çekan e. Divê li dijî sînor û ewlekariya Tirkiyê û Rêveberiya Kurd a Herêma Bakûrê Iraqê nebe gef, divê em vê bibînin. Heger PKK gefan li rêveberiya Hewlêrê bixwe, emê van gefan weke gefên li dijî xwe bibînin. Heger PDK li Sûriyê, li dijî Artêşa Azad a Sûriyê û komên nêzîkê Tirkiyê bibe gef, hingî emê wê yekê weke gefa li dijî xwe bibînin..."

Hemû geşedan nîşana wê yekê ne ku wê pevçûn berdewam bikin. Li ser geşedanên dema pêş, me pirs ji parlamenterên HDP'ê, CHP'ê û AKP'ê û herwiha yên rojnamevan û akademîsyenan kir û nêrînan wan girtin. Parlamenterê HDP'ê yê Mêrdînê Mithat Sancar, Berdevkê HDP'ê Ayhan Bilgen, Parlamenterê AKP'ê yê Wanê Burhan Kayatürk, Parlamenterê CHP'ê Eren Erdem, rojnamevan Oral Çalışlar, rojnamevan Ali Bayramoğlu û Doç. Dr. Mehmet Şahin ji bo BasNûçe'yê axivîn.

### Bilgen: Prose bi çavdêriya aliyê sêyem dikare berdewam be

Berdevkê HDP'ê Ayhan Bilgen diyar kir ku di navbera Serokwezîr û Serokkomar de arîşeya desthilatê heye û pirsa kurd jî pirsa demokratîkbûnê ye û got: "Akademîsyen û rojnamevanên ku ne çekdar in nikarin biaxivin, lê dibêjin 'bila çekan daynin û bên em biaxivin.' Ev e ne rastgoyî ye. Ji ber vê yekê, ji bo çareseriya pirsgirêkê, divê beriya beriya her tiştî, îradeyek demokratîk pêş bikeve. Divê hemû pirsgirêkên Tirkiyê bi perspektîfek demokratîk bên şirovekirin. Heger ev yek nebe, Tirkiye nikare xwe ji pevçûnan rizgar bike. Şaşitî li kê derê hatibe kirin, bêyî dûbarekirina wê şaşitiyê, dikarin hewldanek nû bikin. Lê we diyare, kêmasî di wir de ye ku îradeyek bi hêz e çavdêr ku bikare destpêşxeriyê bike, nîne. Divê alî xwedîê wê destpêşxeriyê nebin ku kengî dilê wan bixwaze proseyê bidawî bikin. Ji ber vê yekê jî, heta aliyek bihêz ê sêyem ku bikare çavdêriyê bike nebe; herwiha ev yek dikare aktêrek civakî yê sivîl jî be û mekanîzmayek cûda jî, prose nikare demdirêjî berdewam bike û bigehe encamê. Hingî jî dema dilê aliyan xwest dikarin proseyê bicemidînin."

### Kayatürk: Kurd êdî piştgirî nadin çekan

Parlamenterê AKP'ê yê Wanê Burhan Kayatürk, amaje bi wê yekê kir ku Proseya Aştiyê AKP'ê daye destpêkirin û got, "Derbarê wê yekê de rexne hatin ku di serdema Proseya Çareseriyê de tevdîrên ewlekariyê baş nehatine plankirin. Ez rêzê ji van rexneyan re digrim lê rast nabînim. Di dema Proseya Çareseriyê de hikûmetê ti şîret li hêzên ewlekariyê nekirin. Bi nêrîna min, eve durûtiya hindek bûrokratan e. Rexneyek din jî ew e ku dibêjin, pêkhate û aliyên din ên herêmê jî beşdarê proseyê nekirine. Di dema derbasbûyî de tenê li gel HDP'ê û kesên xwedî heman bîrûbaweriyê şêwirîn. Hikûmetê li gel partiyê axivî. Ev yek jî heta cihekê rast e. Ji ber ku tenê hikûmetê û HDP'ê neaxivî. Dewletê an jî MÎT'ê tenê li gel Öcalan û PKK'ê neaxivî. Li gel aliyên din ên herêmê jî axivî. Weke mînak, şanda Mirovên Hişmend hate avakirin. Vê şandê li gel tirkan, kurdan û herwiha partiyên û welatiyan re jî şêwirîn. Pêwîstî heye ku nêrîna saziyên sivîl û zêdetir jî kesên li derveyî HDP'ê û PKK'ê jî bê girtin."

Kayatürk got ku êdî divê betonê birijin ser çekan û diyar kir ku êdî PKK jî yan çekan an jî siyasetê hilbijêre. Navborî daxuyand ku ji bo çareseriya pirsgirêkê hikûmetê di seranserê 13 salan de hemû awayê lihevkirin û danûstandinan ceribandiye û wiha pê de çû, "Dema hikûmete ev yek perewkir, CHP û MHP'ê rexneyên cidî li hikûmetê girtin. Serokkomarê me canê xwe xistibû bin bar. Ma AK Partî gotiye em ti rêyên çareseriyê qebûl nakin? Serokê AK Partiyê ev kar destpê kir. Ma kî dikare ji bo me bêje 'hûn bi zext û dijwariyê bersiva daxwazên kurdan didin.' Yên vê yekê dibêjin ne rast diaxivin. Kurd baş dizanin ka AK Partî dixwaze çi bike. Divê êdî PKK jî û HDP jî bibînin ku kurd piştgirî nadin tekoşîna çekdarî.

### Sancar: Di demên dijwarbûna şera de danûstandin dikevin rojevê

Parlamenterê HDP'ê yê Mêrdînê Mithat Sancar jî diyar kir ku dema mirov bi awayek objektîf li daxuyaniyên Davutoğlu meyze dike, tê dîtin ku hikûmetê hemû rêyên vegera ser danûstandinan negirtiye. Navborî got ku di demên dijwarbûna şeran de danûstandin dûbare dikevin rojevê û dema alî jî dibînin ku encamên pevçûnan giran dibin, dixwazin vegerin ser mêzê. Sancar got, "Niha şer di astek giran de ye. Di rewşek wiha de, divê mirov bikare wê hizrê bike ku, dem ji bo vegera ser mêzê guncaw e. An ku her dema ku encamên şer giran dibin, vegera ser mêzê weke pêwîstiyekê û çareseriyekê tê dîtin. Ezmûnên li cîhanê jî vê yekê piştrast dikin. Herwiha li cîhanê gelek mînakên vê yekê jî hene ku di danûstandinan de serneketine û carek din vegeriyane şer. Di hemû mînakan de jî derketiye holê ku, şerên li pey serneketina danûstandinan pir giran bûne. Lê belê, piştî hemû şerekî, carek din bi rêya siyaset û dîplomasiyê, lêgerîna rêyekê danûstandinên nû, çareserî û aştiyê hate kirin. Di vê mijarê de pêşniyara KCK'ê diyar e. Bixwe jî dibêjin ku bi agirbestek misogerkirî, proseyek ku bi sazî û yasayan hatiye hûnandin û herwiha bi başkirina şertên Öcalan dikarin carek din vegerin ser mêzê. Ez jî dibêjim ku di çarçoveya agirbestek misogerkirî û proseyek aştiyê ku bi yasa û saziyan hatiye destnîşankirin, proseyek nû yê çareseriyê dikare destpê bike û derketina hêzên çekdar bo derveyî sînoran jî dikare bibe xala sereke ya vê pêvajoyê.

### Erdem: Divê Davutoğlu li pişta axaftinên xwe be

Parlamenterê CHP'ê yê Stenbolê Eren Erdem jî daxuyaniyên Serokwezîr Davutoğlu û bersiva Serokkomar Erdoğan weke "dubendiyekê" nirxand û diyar kir ku sedema vê dubendiyê jî Erdoğan bixwe ye. Erdem wiha got, "Serokê hikûmetê îradeya çareseriyê destnîşan dike û helwestek bi hêvî nîşan dide. Lê helwesta Erdoğan eşkere dike ku ew li ser xwînê dijî. Roja îro kî rabe û behsa çaresriyê bike û hewla rawestandina xwînê bide, divê hemû kes piştgiriya wî bike. Heger Davutoğlu li pişt gotinên xwe be, divê PKK jî çekên xwe jinav bibe. Divê Serokkomar jî piştgiriyê bide vê hewldanê, ne ku pêşiyê bigre. Ma em çawa ji kuştinan razî bin. Îro Tirkiye bûye gola xwînê. Hemû rojan termên mirovan diçin malên wan. Em piştgiriya aştiyê dikin."

Erdem nêrînên xwe yên derbarê daxuyaniyên Davutoğlu de jî wiha bilêv kir, "Daxuyaniyan kêm bû, lê dîsa jî piştgiriyê didim. Divê Davutoğlu li pişta gotinên xwe be û PKK jî çekan bê deng bike. Divê ev pêvajo vegere ser aştiyê. Davutoğlu sozên zelal û berçav dan. Lê em nizanin ka wê pêk bîne yan na."

### Doç Dr. Mehmet Şahin: PKK û HDP wê nebin teref

Doç. Dr. Mehmet Şahin, jî daxuyand ku ji bo destpêkirina pêvajoyek siyasî hewldanekê nû yê hikûmetê nîne û got, "Ji xwe Serokwezîr piştî hingî axaftinên xwe eşkere kir. Di rojeva Tirkiyê de Proseya Çareseriyê nîne. Bi gotinek din, ew proseya berî ya çareseriyê nema ye. Proseyek weke ya daxwaza PKK'ê û HDP'ê nîne. Bi dîtina min wiha ye. Ji xwe Serokkomar û herwiha Serokwezîr jî gotinên xwe di vî derbarê de bilêv kirin. An ku heta çalakiyên PKK'ê yên bi terorîstî berdewam bikin, heta PKK weke rêxistinek terorîstî bimîne, wê hikûmet heta dawî tekoşîna xwe berdewam bike. Dikarim bêjim ku di vî mijarî de îradeyek tund heye. PKK û HDP hê jî hewl didin xwe weke alî yan jî terefekê nîşan bidin. Daxuyaniyek Zübeyir Aydar hebû ku dixwest Amerîka navbeynkar bibe. Heger cîhan hemû bibe yek jî ez bawer nakim ku di vê mijarê de îradeya hikûmetê bişkînin. Ji ber ku heger di vê demê de carek din pêvajoyek bi navê Proseya Çareseriyê destpê bike wê gelê herêmê zerermend be û PKK jî hêza xwe biparêz e. Herwiha îro ji sedî 80 û 90'ê xelkê Tirkiyê piştgiriya tekoşîna dewletê dike. Ez bawer nakim ku hikûmet piştî van tiştan dest bi proseyek nû bike. Ez dikarim bêjim ku wê ji bo têkbirina serweriya PKK'ê û rêxistinên din jî tekoşîn berdewam bike. Saziyên dewletê û îradeya siyasî jî li ser vê biryarî ne."

### Rojnamevan Ali Bayramoğlu: Di rikberiya ser kurdan de êdî Tirkiye jî aliyek e

Rojnamevan Ali Bayramoğlu dide xuyakirin ku Serokkomar Recep Tayyip Erdoğan zêdetir tund û tûj xuya dike û dibêje, "Bi nêrîna min, beşek vê helwestê rats e. Di hizrê wî de rêza nirxan hate guhertin. Ezmûna ku wî jiyan kir, di vê pêwendiyê de li ser bê baweriyekê rûnişt. Lê ji aliyê din ve jî, Tayyip Erdoğan serokek agresîf e. Ji serekê dikare here sereke din, dema tund be dikare xwe nerm jî bike. Beriya niha jî gelek caran ev yek nîşan da."

Bayramoğlu amaje bi wê yekê kir ku navenda pirsa kurd Rojhilata Navîn girtiye û bi yatbet jî îro Sûriye bûye navenda vê pirsgirêkê, lewma jî Tirkiye dixwaze ev rewş bê guhertin. Bayramoğlu diyar kir ku pêwendiyên Tirkiyê û RHK'ê jî pêşde ne û wiha got, "Tirkiye û rêveberiya Barzanî xwedî heman helwestê bûn. Di gelek xalên nakok de, di mijara gengeşiya navbera şîe û sunneyan de, aloziya Amerîka û Rûsya de, helwesta li hember Rûsya û Îranê de, di heman xetê de bûn. Di demên dawî de tê gotin ku pêwendiyên Tirkiyê yên li gel Barzanî, di mijara pirsa kurd de weke asayîbûnekê tê nirxandin. Ev yek bo Tirkiyê girîng e. Herwiha, li wê derê weke mijarekê ewlekariyê, dema Tirkiye derveyî sînorên xwe dinêre, ne tenê mijara PKK'ê, ji Silêmaniyê heta Lazqiyê, ewlekarî û aramiya hemû herêmê ji bo Tirkiyê girîng e. Bi vî awayî, yekem care ku tirkiye derbarê pêwendî û hevsengiyên navbera kurdan de nêrînên xwe anî ziman. Ev yek eşkere ye û girîng e. Lê ev e tenê gotin e. Diyare ku ev yek polîtîkayek dewletê ye ku li ser hatiye axaftin. Bê guman girîng e ku di mijara pêwendiyên di navbera kurdan de Tirkiye piştgiriya Barzanî bike. Di heman demî de ev yek li gor pêwîstiya helwesta wê ye jî. Tiştek ne seyr û sersûrman e ku li beramber gefên PKK'ê yên li dijî Barzanî biaxive û li dijî serweriya PKK'ê ya herêmên kurdî be."

### Oral Çalışlar: PKK peyama guhertinê nade

Rojnamevan Oral Çalışlar jî got ku divê mirov vê pirsê bike ka gelo birastî jî PKK dixwaze vegere pêvajoya pêşiya Gulana 2013'ê, ku wê demê Öcalan digot tekoşîna çekdarî xilas bûye û ya siyasî destpêkiriye. Çalışlar wiha berdewam kir, "Heger hebe, mirov dikare bêje ku ji bo çareseriyê rêyek dikare bê peyda kirin. Lê PKK di vî mijarî de tiştek negotiye. Ez li daxuyaniyên PKK'ê mêze dikim; derbarê vê yekê de ti tiştek negotine."

Çalışlar diyar kir ku ti nirxandinek PKK'ê nîne ku tê de behsa derketina derveyî sînoran bike, çekan berde û vegere rêbazê tekoşîna siyasî û wiha got, "Ji xwe PKK dibêje emê şerê gel bimeşînin, heta dawî şer bikin û heta desthilata Erdoğan hilweşînin jî berdewam bikin. Encam ev e ku, ew hêza ku serhildana çekdarî daye destpêkirin, her ku peyama berdewamkirina rêbaza tekoşîna çekdarî dide, nêrîna Tirkiyê ya ji bo çareseriyê din jî nayê guhertin. PKK nabêje ku ew ê dest ji tekoşîna çekdarî berde, peyamek wiha nade û ez jî di vî mijarî de guhertinekê di hewlesta PKK'ê de nabînim."

Çalışlar diyar kir ku divê di serî de çek bê deng bibin û herwiha dema çek bêdeng bûn mirov dikare lê binêre ka derfetê danûstandinan heye yan ne. Herwiha Çalışlar destnîşan dike ku heta çek ranewestin û PKK ji xeta xwe neguhere wê dewlet jî paş de gav neavêje.



# Washington navbeynkarê Hewlêr û Bexdayê ye

Zeyat Cebo

Aloziya navbera Hewlêr û Bexdayê herdiçe kûrtir dibe. Piştî ku hikûmeta Iraqê di kabine ya nû de daxwaza kurdan bicîh neanî têkiliya aliyan qut bû. Aliyê kurdan, beriya bi dawîbûna demarêkirina kabîneya teknokrat a Serokwezîrê Iraqê Heyder Ebadî, helwesta xwe eşkere kir û diyar kir ku wê tevlî hikûmetê nebin û ji Bexdayê vekişin.

Di nava hefteya borî de berpirsên Yekîtiya Niştîmaniya Kurdistanê (YNK), Partiya Demokrata Kurdistanê (PDK) û Tevgera Goran civînên cûda pêk anîn û daxuyaniyên hevbeş dan. Di daxuyaniyan de hate gotin ku pêngavên Ebadî yên bi navê çaksazî û revîzyonê, şîrîkatiya di navbera gelê Kurdistanê û dewleta federal a Iraqê jinav dibe û pirsgirêkên di navbera Hewlêr û Bexdayê jî kûrtir dike. Aliyê kurdan ragihand ku di guhertinên hikûmet û saziyan de bê kirin divê para kurdan li ber çav bigre û heger rêveberiya Bexdayê jî pêkvejiyana ligel kurdan dixwaze, divê helwesta xwe bi awayek dilsoz, eşkere bike.

Ji aliyê din ve rêveberiya Washingtonê xwe amade dike ji bo çareseriya qeyrana navbera Hewlêr û Bexdayê navbeykariyê bike. Biryar e Wezîrê Derve yê DYA'yê John Kerry dawiya hefteyê bê Bexdayê. RHK'ê jî wê bi şandekê pilebilind li Bexdayê amade be. Di şandeya kurdan de Serokwezîrê Nêçîrvan Barzanî, Cigirê Serokwezîr Qubad Talabanî, Wezîrê Aborî yê Iraqê Dr. Roj Nûrî Şaweys û Serokê Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê Fuad Hisên cîh digre.

Ji aliyekê din ve, karûbarên RHK yên ji bo derbaskirina qeyrana aborî û tekoşîna li dijî gendeliyan jî berdewam dike. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di civîneke de ligel kadroyên rêxistina PDK'ê de, daxwaza piştgiriyê ji hemû aliyan kir. Herwiha Hikûmeta Herêma Kurdistanê ji bi armanca sererastkirina mûçeyên karmendên hikûmî, çend proje amade kir.

Li eniyên şer de jî Hêzên Pêşmerge li hember DAIŞ'ê serdestiya xwe tekûz kiriye. Ji aliyê xwe ve jî Wezareta Pêşmerge ku beşek ji Koalîsyona Navdewletî ya Tekoşîna Li Dijî DAIŞ'ê ye, amadekariya hinartina şandekê bo DYA'yê dike.



Li Hewlerê jî hatûçûna şandeyên dîplomaîk di nava hefteyê de jî berdewam kir. RHK'ê li Hewlêrê pêşwaziya Nûnerê Taybet ê Serokê DYA'yê di Koalîsyona Navdewletî ya Takoşîna Li Dijî DAIŞ'ê Brett McGurk, Serokê Desteya Bilinda Danustandinên Rikberên Sûriyê Riyad Hicab û Cigirê Wezîrê Derve yê Îtalyayê Enzo Amendola kir.

## Şanda kurd li gel Kerry civiya

Şanda Herêma Kurdistanê di bin serokatiya Nêçîrvan Barzanî de li Bexda bi Wezîrê Derve yê Emerîka John Kerry re civiya û mijara pêwendiyên Bexda û Hewlêrê û herwiha qeyrana darayî ya Herêma Kurdistanê gotûbêj kirin. Şanda Herêma Kurdistanê bi serokatiya Serokwezîrê Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî ku roja înê çû Bexdayê bi Wezîrê Derve yê Amerîkayê John Kerry re civiyan.Li gor agahiyan di civînê de Nûnerî Taybet ê Serokê DYE'yê di şerê li dijî DAIŞ'ê de Brett Mac Gurk, Balyozê Emerîka li Iraqê Stuart Jones amade bûn, dawî pêşhateyên siyasî û ewlekarî yên Iraq û Herêma Kurdistanê gotûbêj kirin. Di vê derbarê de Alîkarê Wezîrê Derve yê Amerîka John Kirby di daxuyaniyekê ragehand ku, di civîna navbera Kerry û Şanda Herêma Kurdistanê de, mijarên siyasî, emnî û aborî hate gotûbêj kirin û got: "Wezîrê Derve yê Amerîka rêzê ji Herêma Kurdistanê re digre li ser wê rola girîng di şikestina DAIŞ'ê de." Piştî hevdîtinan Wezîrê Derve yê DYE'yê John Kerry bi civîneke rojnamevanî ragihand ku DAIŞ ji aliyê leşkerî û aborî ve jî qels bûye û hêzên hevpeymaniya navdewletî jî operasyonên li hemberî DAIŞ'ê berdewan dikin. Kerry diyar kir ku ligel Serokwezîrê Iraqê Heyder Ebadî behsa operasyona rizagarkirina Mûsilê kirine û li gel Serokwezîrê Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî jî mijara qeyrana darayî ya li Herêma Kurdistanê gotûbêj kirine.

## Şanda kurd bi Ebadî re jî civiya

Şanda RHK'ê ku ji Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî, Cigirê Serokwezîr Qubat Talabanî, Berdevkê Hikûmetê Sefîn Dizeyî û Serokê Dîwana Serokatiya Herêmê Fûad Mehsûm pêk dihat, piştî hevdîtina li gel Wezîrê Derve yê DYE'yê, ligel Serokwezîrê Iraqê Heyder Ebadî civiya. Di civînê de pirsgirêkên di navbera Hewlêr û Bexdayê û herwiha şerê dijî DAIŞ'ê hate gotûbêj kirin. Piştî civînê Heyder Ebadî li ser facebookê ragihand ku di civînê de behsa giringiya pêwendî, hemahengî û karê hevbeş ê herdu aliyan kirine. Herwiha mijara çaksaziyan û guhertinên hikûmetê jî hatine nirxandin. Edabî diyar kir ku di hevdîtinê de tekoşîna li dijî DAIŞ'ê jî hatiye gotûbêjkirin û herdu aliyan behsa giringiya rizgarkirina bajarê Mûsilê jî kirine.

## Eseserd: Kurd şandek pilebilind dişînin Bexdayê

Di nava hefteyê de berpirsên pilebilind ên YNK'ê li gel rêveberiya PDK û Tevgera Goran du civînên cuda pêk anîn. Derbarê naveroka civînan de Endamê Polîtbûroya YNK'ê û Serokê Navenda Lêkolînên Stratejîk a Kurdistanê Ferîd Eseserd ji BasNûçe'yê re axivî û got ku civîn li ser rojevek taybet bûn ku tê de helwesta aliyê kurdan li Bexdayê hate gotûbêjkirin. Eseserd got: "Aliyê kurdan di van civînan de prensîb û şertên xwe carek din nirxand. Kurdan li hember Bexdayê xwedî yekhelwestî ne. Mafên ku Destûra Iraqa federel ji bo kurdan destnîşan kiriye û herwiha para kurdan di hikûmeta Iraqê de, diyar in. Kurd duyem netewa mezin ê li Iraqê ne û para wan a di rêveberiyê de jî ji sedî 20 e. Heger lîsteya kabîneya Ebadî ji aliyê parlamen û aliyên din ên siyasî li Iraqê ve bê pesendkirin, wê hingî di saziyên hikûmî û taybet de jî sererastkirin pêk bên. Kurd dixwazin para wan bê parastin û herwiha bixwe namzet û nûnerên xwe diyar bikin. Bi vê armancê wê di rojên pêş me de şandek pilebilind ku nûneriya hemû partiyên kurdan dike, here Bexdayê.

Ferîd Eseserd diyar kir ku di nava kabîneya hikûmeta teknokrat a Ebadî de navê 2 wezîrên kurdan heye û ev jî dike ji sedî 20'ê rêveberiyê û herwiha daxuyand ku ji bo ragihandina serxwebûnê jî du astengiyên ciddî li pêş kurdan heye. Eseserd got: "Hemû partiyên siyasî yên kurd û gelê Kurdistanê jî wek prensîb, serxwebûnê dixwaze. Lê ji bo gehiştina vê qonaxê, du astengiyên ciddî hene. Ya yekem lihevnekirina partiyên siyasî yên kurdan e. Beriya hemû tiştekê divê kurd navmala xwe sererast bikin û yekgirtî bin. Em weke rêveberiya YNK'ê dibêjin, pêwîst e PDK û Tevgera Goran bêyî şert û merc lihev bikin. Divê hikûmet û parlamen çalak bibe û wezîrên ji kar hatine dûrxistin, vegerin ser karên xwe. Mijara duyem jî pirsgirêka sînoran û çarenûsa navçeyên xala 140 e. Piştî şerê DAIŞ'ê li herêmên navborî ku di xala 140 a Destûra Iraqê de hatiye destnîşankirin, sînorek nû ava bû. Lê heta çarenûsa van navçeyan zelal nebe û sînorên Kurdistanê ligel Iraqê neyê diyarkirin, daxwaza cudabûna ji Iraqê wê rê liber alozî û pevçûnên nû veke. Kurd bixwe ne aligirê şerekî nû ne."

## Sofî: Ebadî reforman li dijî kurdan weke şûr bikartîne

Parlamenterê PDK'ê yê Parlamena Kurdistanê Fersed Sofî jî destnîşan kir ku Hikûmeta Federal a Iraqê li ser beşdarbûna hevbeş a hemû pêkheteyên Iraqê hatiye avakirin û hemû aliyek xwedî parek diyar in û got: "Heyder Ebadî mijara çaksaziyan li hember kurdan weke şûr bikartîne. Aliyê kurdan jî li hember vê helwesta Ebadî yekgirtî ne.

Çawa ku kurd xwe tevlî mafê hilbijartina namzetên şîe nake, şîe jî divê heman awayî rêz li hember vê mafê kurdan bigrin. Di vê mijarê de pêwîst e yekem car ligel nûnerên kurdan li Bexdayê rûnin, nêrîna wan bigrin û paşî biryarekê bidin. Eşkere ye ku biryarên Ebadî biryarên tekekesî ne û li dijî destûrê ne. Aliyê kurdan di mijara çaksazî û reforman de piştgiriyê dide Ebadî, lê ew dewsa ku gendelkaran bigre û siza bike, reform û çaksaziyan li dijî kurdan dike kart û fişarek. Heger Bexda bi berdewamî weke mêvan ligel kurdan danûstandinan bike û pêwîstiyên şîrîkatiyek rast pêkneyên, hingî wê kurd bi naçarî biryara xwe bidin."

## Derwêş: Divê êdî kurdan ji bo serxwebûnê kar bikin

Derbarê mijarê de Parlamenterê Yekgirtûya Îslamî li Parlamena Kurdistanê Behza Derwêş Ehmed jî ji bo BasNûçe'yê axivî û diyar kir ku bingeha şîrîkatiya kurdan a ligel Iraqê nemaye û hîmê hatina gelhev jî bi destê rêveberiya Bexdayê hatiye jinavbirin. Ehmed got: "Ebadî bi guhertinên beriya niha 4 kursiyên girîng ji kurdan stend. Yek ji van jî Serekaniya Artêşa Iraqê bû. Lê kurd pêdagiriyê li ser gotûbêjan dikin. Divêya di hikûmeta nû de herî kêm 3 wezîrên kurdan heba. Bi baweriya min divê kurd êdî vê peyamê baş bixwînin û ji bo serxwebûnê kar bikin. Divê projeyek hevbeş ê hemû alî lihev dikin hebe. Divê Parlamena Kurdistanê bê çalakkirin û amadekariyên referandûmê jî bêne kirin. Piştî hingî jî serbixwebûna aborî li ser hîmek xweragir divê bê danîn. Di vê rewşê de bêyî şer û tundiyê, derfet çêbûye ku bi gehiştina serxwebûnê pirsa ligel Bexdayê bê çareserkirin."

## Mihemed: Siyaseta Hewlêrê jî bi qasê ya Bexdayê şaş bû

Parlamenterê Tevgera Goran li Parlamena Iraqê Kawa Mihemed jî Muhemmed jî ragihand ku heta pirsgirêkên di navbera Hewlêr û Bexdayê de neyên çareserkirin, hikûmeta Iraqê para kurdan nade û got: "Me weke nûnerên kurdan li Parlamena Iraqê de derbarê projeya reformên Ebadî û lîsteya kabîneya hikûmeta teknokrat de helwesta xwe xwe derbirî bû. Me daxuyand ku kurd di Iraqê de şîrîkê rast in û divê di rêveberî û wergirtina biryaran de gotina wan jî hebe. Di vê rewşê de ji bo kabîneya Ebadî li parlamenê bê pesendkirin, divê hemû wezaretên pişka pêkhateyan bê dayîn. Li gor zanyariyên me Ebadî razî ye ku wezaretên berî di destê kurdan de carek din li wan vegerîne. Lê siyaseta rêveberiya Hewlêrê jî bi qasî ya Bexdayê şaş e. Bexda bûdceya Kurdistanê dibire, alîkariyê nade Pêşmerge û pêwîstiyên xala 140 cîbicî nake. Li hember vê yekê Hewlêr jî behsa serxwebûnê dike û petrolê bi serê xwe hinarde dike. Jiber vê yekê jî rola kurdan li Bexdayê kêm dibe. Ji ber vê yekê pirsgirêkên li Baxdayê tenê bi destê nûnerên kurdan li Bexdayê çareser nabin." Mihemed herwiha diyar kir ku bi armanca çareserkirina qeyrana herdu aliyan wê Dewletên Yekbûyî yê Amerîkayê rol bigre û got: "Di dawiya heftê de Wezîrê Derve yê DYE'yê John Kerry wê bigehe Bexdayê. Wê şandek ji berpirsên pilebilind ê RHK'ê ji here here Bexdayê. DYA dixwaze pirsgirêk bi rêya gotubêj û rêkeftinê bên çareserkirin. Wê Kerry û şanda kurdan li ser vê yekê ligel Serokomar, Serokwezîr û Serokê Parlamenê û herwiha nûnerê kutleyan re hevdîtinan bike."

## "RHK ji bo reforman gavên berçav diavêje"

Di nava hefteyê de Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ligel kadroyên rêxistina Nînowa, Behdînan û Şengalê yê PDK'ê civînek pêk anî û ji wan xwest ku ji bo reform û çaksaziyên hikûmetê alîkar bibin. Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî, bi armanca sererastkirina mûçeyên karmendan çend projeyan amade kir. Derbarê mijarê de Parlamenterê PDK'ê û Endamê Desteya Destpakî ya Parlamena Kurdistanê Fersed Sofî bo BasNûçe'yê ragihand: "Serok Barzanî di tevahî civînan de biryardariya xwe ya ji bo serxistina proseya çaksaziyê tîne ziman û daxwaza piştgiriyê dike. Di dema borî de hikûmetê jî hejmarek zêde yê dosyayên gendeliyê amade kirin û şandine Desteya Destpakî û dezgehên darazê. Proseyê destpêkiriye. Di demek nêzîk de wê derbarê dosyayan de biryar bê dayîn û encamên wê jî ji rayagiştî re bêne eşkerekirin. Ji aliyê xwe ve hikûmetê jî çend biryarek ji bo çaksayina wergirt. Ji bo sererastkirina mûçeyên karmendan û herwiha ji bo di nav 3 mehan de derbasî sîstema elektronîkî bibin kar tê kirin. Bi vî awayî wê mûçeyên karmendan di dema wê de bêne dayîn û herwiha kesên ku ne karmend in jî bên diyar kirin."

## Fermandar Hewêzî: Pêşmerge li hemû eniyan de serdest e

Artêşa Iraqê ku bi armanca pêkanîna operasyona Mûsilê li devera Mexmûrê ne, di nava hefteyê de gundê Nasir ê ser bi Geyara ji destê DAIŞ'ê derxist. Lê berpirsên leşkerî dibêjin, ji bo berferehkirin û pêşdeçûna operasyonê pêwîstî bi hêzek mezintir û plansaziyek berferehtir heye. Ji aliyê din ve jî hate dîtin ku çekdarên DAIŞ'ê ku di demên derbasbûyî de ji rewşa nelibar ê hewayê sûd werdigirtin û êrîş dikirin ser eniyên Kerkûk, Mûsil û Mexmûrê, piştî xweşbûna rewşa hewayê êrîşên xwe kêm kirin. Derbarê mijarê de Berpirsê Ragihandina Hêzên Zîrevanî Liwa Azad Hewêzî ji bo BasNûçe'yê diyar kir ku Hêzên Pêşmerge kariye li hemû eniyên şer li dijî DAIŞ'ê serwer bibe. Hewêzî da zanîn ku balafirên şer ên Hevpeymaniya Navdewletî jî di dema derbasbûyî de gelek caran Mûsil dane ber bombeyan û got: "Eşkere ye ku DAIŞ ne hêza xwe jidest daye. Hêzên Pêşmerge ji Şengalê heta Kerkûkê li hemû eniyên şer kariye hemû êrîşên terorîstan pûç bike û derbeyên giran li wan bide. Jixwe rêxistinên terorîstî, dema di êrîşên xwe de ser dikevin zêdetir wêrek dibin û êrîşan dikin. Lê dema derbeyan dixwin ji paş de vedigerin û ji cihê xwe dernakevin. Li eniyên şer ên Mûsilê de Hêzên Pêşmerge serkeftinek mezin tomar kiriye. Herwiha rojane balafirên Hevpeymanan ji pêgeh û baregahên wan bombebaran dikin û derbeyên giran li wan didin." Hewêzî diyar kir ku amadekariyên operasyona Mûsilê jî berdewam dikin û got ku, hêza 72 û 91 ya firqeya 15 a artêşa Iraqê xwedî hêz û şiyanê nîne ku bikare bajarê Mûsilê ji destê DAIŞ'ê rizgar bike.

## Yawer: Şandek Pêşmerge diçe DYA'yê

Sekreterê Giştî yê Wezareta Pêşmerge Cebar Yawer da zanîn ku wê şandek ji Wezareta Pêşmerge di dema pêş de serdana DYA'yê bike û ligel berpirsên wî welatî bicive. Yawer bo BasNûçe'yê axivî û got: "Bi erêkirina Serokê RHK'ê û Hikûmeta Herêmê wê şandek ji Wezareta Pêşmerge here DYA'yê. Lê dema çûna şandê nehatiye diyarkirin. Wezareta Pêşmerge beşek e ji Koaliyona Navdewletî ya Tekoşîna Li Dijî DAIŞ'ê. Ji lewra ligel Hêzên Hevpeymanan di nava hemahengiyê de ye. Wê şand li DYA'yê ligel berpirsên vî welatî bicive û mijara tekoşîna li dijî DAIŞ'ê, pirçekkirin û alîkariya bo Hêzên Pêşmerge gotûbêj bike. Herwiha wê şand daxwaza piştgiriya zêdetir bike." Cebar Yawer behsa êrîşên ku li eniya Mexmûr, piştî hatina artêşa Iraqê jî kir û got: "Li seranserê eniyên şer kesên ku alîkarî didin DAIŞ'ê hene. Agahiyên ku dibêjin, di nava Artêşa Iraqê de zanyarî derbarê Pêşmerge de digehin destê DAIŞ'ê, tenê gotin in. Di vê derbarê de, tu belgeyek di destê me de nîne. Zêdebûna êrîşên li vî eniyê, qelsiya ewlekariyê ye. Ji ber vê di êrîşa dema borî de 4 Pêşmergeyên me şehîd bûn. Derbarê mijarê de lêpirsîn hatiye destpêkirin."

## Barzanî ligel McGurk kom bû

Di destpêka hefteya borî de, Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî li Selahadînê pêşwaziya Nûnerê Taybetê Serokê DYA'yê Obama ya Hevpeymaniya Navdewletî ya Şerê Dijî DAIŞ'ê Brett McGurg kir. Di hevdîtinê de ku Balyozê Amerîka li Iraqê Stuart Jones jî amade bû, derbarê rewşa siyasî ya Iraqê û sedemên qeyrana siyasî ya Bexdayê de danustandina bîr û ramanan hate kirin û biryar hate dayîn ku her du alî li şêwirîna peydakirina rêyeke derbasbûna ji qeyrana siyasî de berdewam bibin. Di beşekê din ê civînê de behsa peywendiyên her du aliyan hate kirin û herwiha behsa amadekariyên operasyona azadkirina Mûsil û qonaxa piştî azadkirina Mûsilê jî hate kirin.

## Barzanî pêşwaziya Riyaz Hicab kir

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di nava hefteyê de pêşwaziya Serokê Deste ya Bilind a Danustandinên Opozîsyonê Riyaz Hicab Sûriyê kir. Di hevdîtinê de aliyan, derbarê rewşa siyasî û pêşketinên dawî yên Sûriyê û herwiha guftûgo û danustandinên Cenevre ya li ser çareserkirina qeyrana Sûriyê, danustandina bîr û ramanan kirin. Herwiha di hevdîtinê de Barzanî hêviya wê yekê xwest ku danustandinên Cenevre bi xêr û li berjewendiya xelkê Sûriyê de bigihe encamê û piştevaniya xwe jî ji bo her hewlek ku bibê sedema bidawîanîna bi êşên gelê Sûriyê, nîşan da.

## Barzanî: Alîkarên terorê wê di agirê wî de bişewitin!

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî li Selahadînê pêşwaziya Cigirê Wezîrê Derve yê Îtalya Enzo Amendola, Balyozê Îtalya li Iraq Marko Karlinos û Konsolê Îtalya li Hewlêr Alesandra Dipibo kir. Di hevdîtinê de Cigirê Wezîrê Derveyê Îtalyayê diyar kir ku welatê wî xwe bi dostê gelê Kurdistanê dizanê û rêz li xebat û qurbanîdana gelê Kurdistanê û herwiha daxwaza gelê Kurdistanê ya ji bo dabînkirina paşarojeke baştir digre. Enzo Amendola ragihand ku wê welatê wî piştevaniya Herêma Kurdistanê bike.

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî jî diyar kir ku Serokwezîr û berpirsên bilind ên Îtalya di dema şerê DAIŞ'ê de serdana Herêma Kurdistanê kirine û ev yek jî belgeya dostaniya gelê Kurdistanê û gelê Îtalyayê ye. Barzanî behsa şerê teror û serkeftinên hêzên Pêşmerge kir û got ku teror gefek cîhaniye li ser hemû aliyekê û ji bo rûbirûbûna wê jî pêwîstiya hewlekî niyazpak û ciddî ya hemû welatan heye. Barzanî got: "Nabê hindek alî terorê wek kartekî bikarbînin ji ber ku di encamê de her ew bi xwe li agirê terorê de dişewitin." Her li vê hevdîtinê de behsa peywendiyên di navbera Herêma Kurdistan û Bexdayê kirin û şanda mihvan Serok Barzanî ji kar û çalakiyên tîmên Îtalya li Kurdistanê û Bendava Mûsilê agahdar kirin.



Piştî ku Serokwezîrê Iraqê Heyder Ebadî lîsteya kabîneya teknokrat eşkere kir, aliyê kurdan bi peyamekê ji Bexdayê xwest ku helwesta xwe ya derbarê şîrîkatiya ligel kurdan bi awayeki rastgo eşkere bike. Li ser kûrbûna qeyrana navbera Hewlêr û Bexdayê DYA'yê amadekariyê dike ku bibe navbeynkar. Li ser vê yekê biryar e Wezîrê Derve yê DYA'yê John Kerry bê Bexdayê û ligel aliyan hevdîtinan bike. Herwiha RHK jî xwe amade dike di bin serokatiya Serokwezîr Neçîrvan Barzani de bi şandekê li Bexdayê amade be.

Mesûr Barzanî:

# Kurd ji bo hemû cîhanê bi DAIŞ'ê şer dikin

Rawêjkarê Civata Ewlekariya Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî ragihand ku her çend 4 meh in Pêşmergeyan mûçeyên xwe vernegirtine jî, lê baweriya wan bi armancên wan heye û got, "Kurd bi navê hemû cîhanê li dijî DAIŞ'ê şer dikin."

Rawêjkarê Civata Ewlekariya Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî ji malpera Amerîkayê ya CBS Newsê re ragihand ku kurdan tenê ji bo xwe şer nakin û bi navê hemû cîhanê li dijî DAIŞ'ê şer dikin. Barzanî, wiha axivî: "Hêzên Pêşmerge yên Kurdistanê her çend 4 meh in mûçeyên xwe vernegiritine jî, lê hîn jî li bereyên herî pêş û çeperên herî pêş li dijî DAIŞ'ê şer dikin. Ji ber ku Pêşmerge baweriya xwe bi armancên xwe heye."

Barzanî diyar kir û got ku Pêşmerge hemû jî xwedî zarok û hevjîn in û nizanin heta çi demê wê bê mûçe, di rêzên şer ên pêş de şer berdewam bikin û ev e di demek de ye ku hatina nêzîk 2 milyon avare û penaber û krîza aborî kûrtir kiriye, her ji ber vê jî rêjeya rûniştwanên Herêma Kurdistanê ji sedî 30 zêde û bilind kiriye. Mesrûr Barzanî di hevpeyvînê de behsa metirsiyên têkçûna bendava Mûsilê kir û got: "Eger bendav têkbiçê, beşekî piraniya Mûsilê di çend saetan de wê bin avê de bimîne û heta wê bighîje Bexdayê jî û çi bikeve pêş jî wê wêran bike."







# Îstîmlaqkirina Sûrê ne hiqûqî ye

Ercan Ekinci

Navçeya Sûrê ya Amedê piştî pevçûnên dijwar zirareke gelek mezin dît. Bi taybet jî taxên Cevatpaşa, Fatihpaşa, Dabanoğlu, Hasırlı, Cemal Yılmaz û Savaşê ku di bin qedexe û şerekî giran de bûn. Niha jî çarenûsa Sûrê tê niqaşkirin ku wê ew xisar û zirara mezin çawa bê çareserkirin? 16'ê Adarê ji aliyê Lijneya Wezîran ve biryara "îstîmlaqkirina lezgîn" hatibû stendin. Li gor vê biryarê li 15 taxan li 6 hezar û 300 qud (parsel) hate îstîmlaqkirin. Di biryara Lijneya Wezîran ku 16'ê Adarê di Rojnameya Fermî de hat belavkirin de wiha hatiye gotin: "Cihê lê, girav û quda nimireya milkên ku di nava sînorên birîsk yên navçeya Sûrê ya Amedê de ji aliyê Wezareta Bajarvanî û Hawirdorê ve di 16.03.2016'an de li ser nivîsa 2988'an li gor yasaya îstîmlaqkirinê ya hejmara 2942'yê û li gor benda 27'an ji hêla Lijneya Wezîran ve di dîroka 21.03.2016'an biryar hatiye dayîn." Navçeya dîrokî ya Sûra Amedê ku di lîsteya UNESCO'yê de jî cih digire, bi biryara Lijneya Wezîran ve ku li gor daxwaza Wezereta Bajarvanî û Hawirdorê ve hat dayîn, ji sedî 60 hate îstîmlaqkirin. Di nava qada hatiye îstîmlaqkirin de avahiyê şarredeariyê, hin hotel û Qonaxa Cemîl Paşa jî cih digirin. Baroya Amedê ji bo betalkirina biryara "îstîmlaqkirina lezgîn" ya Sûrê bi sedema ku li dij hiqûqê ye serî li Şûreya Dewletê dabû. Li ser mijara îstîmlaqkirina Sûrê Cîgirê Serokê Baroyê Ahmet Özmen û Endamê Rêveberiya Baroya Amedê Kutbettin Odabaşı Ji BasNûçe'yê re axivîn.

**Ahmet Özmen: Li gor biryara Lijneya Wezîran mirov nikare yekser biçe Dadgeha Îdarî**

Cîgirê Serokê Baroya Amedê Ahmet Özmen eşkere dike ku divê serî li Şûraya Dewletê (Daniştay) bê dayîn û dibêje: "Daireya Cezayê ya 6. Şûraya Dewletê di vê mijarê de xwedî peywîr e. Li gor biryara Lijneya Wezîran mirov nikare yekser biçe Dadgeha Îdarî. Li dj van biryaran divê mirov biçe serî li dadgeha bilind, Şûraya Dewletê bide û dozê li wir vebike. Di pêvajoya îstîmlaqkirinê de di tespîtkirina berdel de eger di navbera hemwelatî û îdareyê de lihevkirinek çênebe, wê demê dozê sazî vedike. Di vê rewşê de sazî dibe dozdar. Zabitnameyên lihevkirin hebe û delîl neyên nîşandan, wê demê dadgeh wê doza berdelî veke.

**'Di nava 30 rojan de dikarin serî li Dadgeha Bilind bidin'**

Cîgirê Serokê Baroyê Özmen, Mafê Serlêdanê yê Takekesî bo Dadgeha Bilind wiha vegot: "Piştî biryarên teqezkirî rêya Dadgeha Bilind vedibe. Dibe ku ev biryara dozeke ji Şûraya Dewletê derketibe jî û ji dadgeheke din jî derketibe. Piştî biryara teqezkirî ku eger mafeke hatibe binpêkirin, di nava 30 rojan de, dikarin serî li Dadgeha Bilind bidin. Gelek rêyên darazê hene. Rêgeza sereke ev e. Ya yekem serlêdana takekesî heye û ya din jî li dij biryara Lijneya Wezîran a îstîmlaqkirinê dikare biçe Şûraya Dewletê. Di pêşerojê de jî sazî dikare dozê veke."

Biryara Lijneya Wezîran ku ji bo îstimlaqkirina lezgîn ya navçeya Sûra Amedê hatibû dayîn, tê nîqaşkirin. Baroya Amedê diyar kir ku wergirtina biryara îstimlaqkirina lezgîn li dij hiqûqê ye û ji bo betalkirina vê biryarê serlêdana Şûraya Dewletê kir.

**'Di nava 'îstîmlaqa lezgîn' û îstîmlaqê de cudahî heye'**

Ahmet Özmen dibêje ku di navbera 'îstîmlaqa lezgîn' û 'îstîmlaqê' de cudahî heye û wiha pê de diçe: "Pêşiya îstîmlaqê de hin pêkanîn hene ku divê bên kirin. Lêpirsîn, raport, tenkît û tespîta berdelan. Piştî wê yekê agahdarkirin. Agahdarnameya ku 'em vî erdê we îstîmlaq dikin' wê biçe û herî dawîn jî teblîxnameya 'berdela wê evqas e' tê. Lê belê di 'îstîmlaqa lezgîn' de berovajî ye. Ewılî biryara îsîmlaqê tê wergirtin, paşê tespîta berdel û pêkanînên din tên kirin. Ji ber leza kar tiştên di yasayê de, pêvajoya ku divê bê meşandin nayê birêvebirin. Ji berk u kar bilez tê kirin, ewilî biryar tê hildan û paşê pêvajoya me qalkirî tê meşandin."

Özmen radigihîne u ji ber sedemên binpêkirina mafê milkiyetê mirov dikare biçe Dadgeha Mafên Mirovan ya Navnetewî û wiha axivî: "Lê divê rêyên hiqûqê yên hindûr bên bikaranîn û xerçkirin. Ev ne rewşeke hêsan e. Lê bi kurtasî mafê mirovan heye ku biçin serî li Dadgeha Mafên Mirovan ya Ewropayê (DMME) bidin. Dikarin li van rêyan bigerin.

**'Daxwaza me ev e ku li gor dîroka Sûrê prosesek bê meşandin'**

Özmen li ser navçeya Sûrê û wêranbûna wê jî amaje bi wê yekê dike ku UNESCO'yê Sûr girt nav lîseteya xwe ya Mîratên Çandî yên Cîhanê û eşkere dike ku dibe ku bi vê biryara îstîmlaqê çand û dîroka wê zirareke mezintir bibîne û ev îhtîmal heye. Özmen dibêje ku derfetê UNESCO'yê tune ye ku daxîlî pêvajo û biryara îstîmlaqê bibe, lê dibe ku ji hikûmetê bê xwestin ku îstîmlaq li gor mercên navnetewî û krîterên UNESCO'yê bê birêvebirin û kîjan pêkanîn bê kirin li gor van rêbazan bên kirin. Cîgirê Serokê Baroyê axatina xwe bi van gotinan dawî dike: "Devereke ku bûye Mîreteya Çandî ya Cîhanê. Sûr dilê Amedê ye. Divê îstîmlaq li gor çand û dîroka navçeyê bê kirin. Daxwaza me jî ev e ku li gor dîroka Sûrê prosesek bê meşandin. Sedema vekirina doza kum e vekirî jî ev bû.

**Kutbettin Odabaşı: Di benda 27. de mercê sekinandina biryarê heye**

Endamê Rêveberiya Baroya Amedê Parêzer Kutbettin Odabaşı li ser biryarê îstîmlaqkirina Sûrê dibêje ku, "biryara îstîmlaqkirina lezgîn derveyî hiqûqê ye." Odabaşı diyar dike ku di benda 27. de mercê sekinandina biryarê heye û dibêje: "Piştî ku parêznameya aliyê din hate wergirtin, herî dereng di nava 3 mehan de Dadgeha Îdarî dikare biryarê rawestîne. Lê divê parêznameya aliyê hember bistîne. Dadgeha Îdarê wê li gor îfadeyên aliyan biryara xwe bide."

Parêzer Odabaşı ji radigihîne ku ji bo biryara îstîmlaqkirinê dozê bidin rawestandin, rêvebirina pêkanînê wê bisekine û eger Dadgeha Îdarê biryarê nede sekinandin, îstîmlaqkirin wê bi awayekî fîîlî destpê bike û Odabaşı, wiha dirêjiyê dide axaftina xwe: "Li gor bendên 11, 12, 1, 14, û 15'an ku di yasaya îstîmlaqkirinê de cih digirin, şandeyek wê biçe û tespîtan bike û aliyan daxwazî lihevkirnê bike. Eger kesê ku erdê û malê wî tê îstîmlaqkirin, qebûl neke, ew bi xwe wê biçe serî li Dadgeha Hiqûqê ya Asliyê bide. Dadgeh jî wê îqtara wî erdî tespît bike. Dozdar qebûl neke jî ji wir û pê ve pêkanînên pêwîst wê bên kirin."

**"Di îstîmlaqkirinê de peyva 'mexdûr' nayê bikaranîn"**

Odabaşı dibêje ku di îstîmlaqkirinê de peyva 'mexdûr' nayê bikaranîn û dema îdareyê derek îstîmlaqkir, li gor ji holê rakirina mexdûriya aliyê din, vê yekê dike. Parêzer Odabaşı diyar dike ku niyeteke îdareyê ya ku destdanîna ser erdê xelkê tune ye û dewlet li vir ji hemwelatiyê xwe re dibêje 'min heqê malê te da' û wiha diaxive: "Îdare kesên xwedî zanyar, nexşevan û endezyaran tîne. Dewlet li gor vê komîsyonekê ava dike. Ew komîsyon nirxê vî malî diyar dike. Eger hê jî îtîraza dozdar hebe, dadgeha peywîrdar şandeyekê ava dike û berdela milk tespît dike."

Odabaşı di dawiya axaftina xwe amaje bi wê yekê dike ku ji bilî îstîmlaqkirinê eger windahiyeke welatiyan a di pevçûnan de jî hebe, mafê wan heye ku li gor benda 25. a Dadgeha Bilind, dikarin Dadgeha Îdarî li doza tezmînata madî û manewî vekin û her wiha yasaya bi hejmara 5233'yan ji bo jinavbirina zirarên ku di encama têkoşîna bi terorê re dertên holê, hatiye çêkirin.



Kurd-Kav

# Banga xwedî derketina saziyan

Esat Kınış

Komeleya Lêkolîn û Çanda Kurd (Kurd-Kav) yekem car li Tirkiyê bi navê kurdî hatiye pejirandin. Seroka Kurd-Kav'ê Fisun Parlak Kılıçkap, dibêje rayagiştî ya kurd, derdorên kurd alîkariya wan nakin.

Kılıçkap tîne ziman ku ji ber xemsariya kurdan a li hember saziyên kurdî giliyan dike û dibêje, "Bi taybet kurd zêde giringî nadin wan saziyên ku ji bo kurdan kar dikin. Pêwîst e hemû kurd ji bo saziyên wiha xwe bikin bin bar û destê xwe bixin bin kevirî. Çanda kurdan tenê bi alîkariya saziyên wiha dikare li ser piyan bimîne."

Kurd-Kav, ji zêdetirî 20 salane li ser çanda kurdan kar dike. Seroka Kurd-Kav'ê Fisun Parlak Kılıçkap, ji bo BasNûçê'yê behsa raborî, rewş, kar û çalakiyên komeleyê kir.

**"Biryar li paş komkûjiya Helebcê hate dayîn"**

Kılıçkapê got, "Hizra avakirina komeleyê cara pêşîn li sala 1988'ê an ko piştî komkûjiya Helebcê peyda bû. Wek tê zanîn di encama êrişa bi çekên kîmyewî yên rejîma Saddam Husên de li Helebcê bi hezaran kurd hatine kuştin, bi hezaran jî koç kirine Îran û Tirkiyê. Ez dikarim bêjim paş vê pêvajoyê hizra avakirina komelê çêbû. Wê demê nêzîkê sed rewşenbîr, rojnameger û nivîskarên kurd li 1991'ê komîteyek bi navê Komîteya Pêşîgirtina Komkujiya Kurdan ava kirin. Armanca vê komîteyê ew bû ku bi çalakiyan li dijî komkûjiyên li ser kurdan bisekinîn û herwiha derbarê komkûjiyên li dijî kurda hatine pêkanîn, cîhanê pê bihesînin û agahdar bikin. Piştî çend çalakiyan komîteyê karên xwe rawestand. Wê demê hizra avakirina komeleyê çêbû."

**'Komîtê di avakirina komelê de jî cih girt'**

Kılıçkap diyar kir ku piştî Komîteya Pêşîgirtina Komkujiya Kurdan belav bû, endamên wê di encama hindek karan de biryara avakirina komeleyekê dan û wiha dibêje: "Herwiha avakarina komeleyê wek avakirina partiyê nîne. Avakirina komeleyê zehmetir e. Cara pêşîn belgeyên fermî yên waqfê ango komeleyê hatine amadekirin û paşî desteya rêvebiriyê hate destnîşankirin. Li pey de jî endamên komelê 24 Tîrmeha 1992'ê serî li dadgehê dan. Piştî 4 salên pevajoya dadgehê, komele di sala 1996'ê de hate vekirin, ji aliyê dadgehê ve hate pejirandin û statûya fermî vergirt. Taybmendiya Kurd-Kav'ê ew e ku li Tirkiyê yekem komeleya bi navê kurdî hatiye pejirandin. Me heta niha gelek kar kirin. Me ders û waneyên kurdî dan, alîkariya xwandewanan kir. Dîsa, me ji bo bûrs û xwendina bilind xwandekar şandin Ewropayê. Wek tê zanîn em di encama van karan de rastî gelek zextan hatin. Karên me hatine astengkirin. Lê belê me dîsa dest ji têkoşînê berneda."






**'Xebatên me berdewam dikin'**

Seroka Komelê Kılıçkap got ku zehmetiyên aborî pêşiya gelek daxwaz û karên wan girtiye ku xwestine di qadên cuda de bikin û wiha pêde çû, "Her çend karên me rastî zehmetiyan hatibe jî dîsa naha karên me berdewam in. Komela me her heftê, rojên pênşeman, gotûbêjan li ser dîrok û çanda Kurdistanê pêk tîne. Dîsa her rojên şemiyan li atoleyaya me ya filman de filmên li ser kurda tên nîşandan. Herwiha dersên li ser muzikê berdewam dikin. Rojên yêkşeman jî ders û waneyên kurdî, yên zaravayê kurmancî û zazakî tên dayîn. Ev kar û çalakiyên me ne ku em bi derfetên xwe yên kêm birêve dibin. Em hewldidin kû karên cûda jî bikin."




**'Rayagiştî ya kurd komeleya me baş nas nake'**

Kılıçkap dide xuyakirin ku bi tevê hebûna astengiyên aborî, rayagiştî ya kurdan jî komeleyê baş nas nake û dibêje, "Ez baweri m ku em li nav kurdan zêde nayên nasîn. Ev yek tenê ji bo komele ya me wiha nîne. Ji bo saziyên din ên kurda jî wiha ye. Bi taybetî me zehmetiyên giran ên aborî hene. Mixabin tu kes alîkariyê nade me. Aborî pişta me dişkêne. Wek tê komele xwe bi aborî û fînasê li ser lingan digrin û mixabin em jî li aliyê aboriyê qelsin."

**'Bar dikeve ser milê herkesî'**

Seroka Komeleya Lêkolîn û Çanda Kurd (Kurd-Kav) ê dibêje ku tu pêwendiya wan bi sazî û partiyan ve nîne û wiha li ser zêde dike: "Ev komele li ser hemû kurdan lêkolînan dike, çanda kurdan diparêze. Komele malê hemû kurda ye. Ji ber vê yekê pêwîste kurd hemû alîkariya me bikin û herkesekê ku bixwaze jî dikare tewlî çalakiyên me bibin.

**'Projeyên me yên sekinî hene'**

Kılıçkap diyar kir ku projeyên wan hene ku ew dixwazin alîkariyê bidin xwandekaran û zanîngehekê jî vekin û wiha diaxive: "Lêbelê ji bo çêkirina wan projeyan aborî pisgirêkek mezin e. Niha tenê em dikarin debara xwe ya aborî bikin.

Kılıçkap daxuyand ku ew naxwaze li ser mijarên siyasî biaxive, ji ber ku di mijara pirsa kurd de weke komele nêrîna wan zelal û eşkere ye. çkap got ku kurd neteweyek cûda ne, xwedan ax û welat in û axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Em di pêvajoyek wesa de ne ku pêwîstiya hemû partî û rêxistinên kurda bi yêkîtiyê heye. Me pêwîstî bi yêkbûna kurdan heye. Heger em nebin yêk em ê rastî pisgirêkên mezin bên. Ji ber vê yekê em heta dawî alîgirê yêkbûna kurdan e."

Seroka Kurd-Kav'ê Fisun Parlak Kılıçkap, dibêje "Komeleya Lêkolîn û Çanda Kurd yek ji wan komelên yekem e ku li Tirkiyê, di sala 1992'ê de hatiye vekirin. Kurd-Kav ev çend sal in li ser kurdan lêkolînan dike, lê mixabin em li rayagiştî û derdorên kurd tu alîkariyê nabînin."

# Derwêşê hemdem yê muzîsyênên kolanan

Can Dirmo

Cengiz Yazgı, bi gotina xwe ew kes e ku ji çerxa felekê derbas bûye. Salên 1990'an da wek, gelek malbatên kurd, malbata wî jî, ji ber valakirina gundan koçi Stenbolê kiriye. Jiyana Cengiz û gelek ceribandinên wî li kolanên "Girava Dîrokî" ku "Stenbola qedîm" tê binavkirin destpê dike.

Ji bo ku em çîroka Cengiz û serpehatiyên wî hîn bibin, em berê xwe didin ciyê ku mûzîka xwe bi kar tîne. Rastî, em ê pergî bi çi menzere yê werin, me gelek meraq dikir. Di nava cafêya ku Cengiz mûzîka xwe çêdikir, ji texmînên me gelek zêdetir kes hebûn. Em rasti qelebalixêke mezin hatibûn. Bi stranên Cengiz, gelek keç û xort dest di destda, bi coş û kêfêkê xweş govend digerandin.

Yek jî ku bala me kişand, dekora nava hindir bû. Cafe, bi poster û wêneyên kesên ku dîroka kurd û tevgera çep a Tirkiyê de rolên gelek girîng lîstine, hatibû xemilandin.

Her wisa xuya bû, ku di cafeyê da xeynî salona konserê, gelek çalakîyên çandî ji dihatin kirin. Piştî hevnasîna me ya kurt, em li ciyekî rûdinin û benda xelaskirina konserê dimînin.Li ser masê çavê me menûya siparişê dikeve. Ez, ji garson pirs dikim, ka gelo 'etûrê Agirîyê' çiştêkê çewa ye? Le, ew gelek tawsîye dike û dibêje "lazim e hûn bixwin." Etûrê Agirîyê cûreyekî xwarinan e, ku di nava nanê lawaşê da goştê mirîşkê, penêrê qaşar û tirşîna îsotê tê çêkirin.

Konser demêkê dirêj dewam dike, lê rastî jî em laqayî dengekê cihê û xweş hatibûn. Piştî xilaskirina konserê me, Cengiz li ba xwe dît.

**'Li kolana firotina desmalan ji bo min şoreşêk bû'**

Bi her hal Cengiz da kifş bû ku miroveké dilgerm û samîmî bû. Piştî rûniştandina di gel me, dest bi serpehatiya jiyana xwe dike. Cengiz, sala 1987'an da ji bajarê Sêrtê ji navçeya Baykanê, qeza Ziyaretê hatiye dinê. Malbata wî di salên 1990'an de ji ber valakirina gund û cihan koçî Stenbolê kiriye. Ev nêzîkî 15 sal in ku li Stenbolê dijîn.

Bicîhbûna Stenbolê, dibe sedem ku wê demê mîna gelek malbatên kurd malbata Cengiz jî bi xîzanî û tunebûnê ve rûbirû dimîne. Ji ber vê yekê di gel temenê xwe ya biçûk, neçar dimîne ku bixebite û cara yekem bi firotina desmalan dest bi kar dike.

Cengiz raboriya xwe û muzîkê wiha raberî me dike: "Firotina desmalan ji bo min şoreşekê ye." Sedema vê gotinê jî wisa rave dike, "Min di nava Fakulta Çapa û Cerrahpaşayê da desmalan difirot. Gava ku min di nava xwendevanan da desmalan difrot, hevbandoriyekê çedibû. Dîsa, di nava wan xwendevanan da gelek xwendevanên kurd jî hebûn. Bi vî awayî bandora wan xwendevanan hem li aliyê fikrî, hem jî aliyê mûzîkê ve gelek li ser min çêbû."

**'Wê demê hew mabû ku bikevim dersên anatomiyê'**

Cengiz, piştî demêkê kurt, ew kolanên ku zarokatiya xwe de desmalan lê difirot, ev car bi gîtara xwe carekê din lê vedigere. Sala 2012'de wexta ku gelek mahkumên siyasî dest bi grêva birçibûnê dikin, Cengiz jî biryar dide ku kolan û sikakên Stenbolê da di gel gîtara xwe, bi zimanê xwe stranan bistre. Cengiz wê demê vî karê gelek nû wêrek dibîne.

Di Stenbolê da ciyê herî navendî weke: Taksim, Şirinevler, Bakirköy û Avcılar li kolanan stranên kurdî dibêje. Bi gotina Cengiz, ev yek gelek xweşên mirovan diçe û tepkiyên baş didan. Elbet ê nebaş jî çêdibûn, lê zêdetir helwesta polis û zabitayan xirab bûn. Ji xwe ji ber tevgerên polis û zabitayan hêrs dibe û biryar dide ku Stenbolê û kolanên wê terk bike.

**Derweşê hemdem**

Piştî destberdana kolanan, Cengiz hewldide ku gîtara xwe bigre û here bajarên kurdan. Rawestgeha wî ya yekem, ciyê ku hatiye dinê, yanê Sêrtê ye. Dûre Dersim, Amed, Şirnex, Riha, Wan, Bedlis û kolanên gelek bajaran da stranên xwe deng dide. Cengiz, diyar dike ku "Dema pêvajoya çareseriyê da derûniya mirovan gelek baş bû û ev yek dibiya sedem ku bi hêsanî mûzîka xwe jî bi kar bîne. Dîsa, di van bajaran de, serî da gel li min gelek ecebmayî mêze dikir. Lê piştî demekê kirt nêrînên mirovan hat guhertin û li aliyê gel ve wek "derweşê hemdem" hatim binavkirin."



**Li gunda nasîna hûnerê**

Cengiz dibêje, "Tarza muzîka min û awaza min bi rihê gîtara min ve girêdayî ye." Ew tarza xwe ya mûzîkê wiha dide nasîn: "Tarza mûzîka min soft rock e û ez zêdetir stranên li gor dilê xwe û li gor gitara xwe dibêjim." Dîsa li kolanan stranên hûnermendên navdar ê kurd wek; Şivan Perwer, Ciwan Haco û Mihemed Şêxo jî li gor tarza xwe distre.

Carinan jî gûh dide gûhdaran û daxwazên wan jî bi cih tîne. Cengiz, heta niha albûmêk çênekiriye. Vê yekê jî girê dide bê derfetbûn û tengasiya maddî. Tenê stranên ku bi xwe çêkiriye û dixwîne, li hin malperan da parve dike. Ev yek li gor Cengiz, bi çêkirina albûman gelek kêmmesreftir û bi bandortir e.

Her wiha Cengiz, strana ku dawiyê de çekiriye jî diyarîya bo hevalekî wê ye ku komkujîya Enqerê da jiyana xwe ji dest daye. Dibêje, wê ev stran jî demekê dirêj da derkeve.

**'Dixwazim hişmendiyeke diroki bidim guhdarvanen xwe'**

Her çiqas ku Cengiz, demekê zû de hatibe Stenbolê jî kurdî ya wê gelek baş e û bala me dikşîne. Sedema vê yekê jî girê dide mûzîkê û wiha radigihîne: "Ez bi saya mûzîkê baş bi kurdî dizanim, lêbelê nikarim binivsînim. Ezê nivisandinê jî fer bibim.

Derbarê polîtikayên asimilasyonê de jî dibêje, lazım e ev tişt ji me re nebe bahane, îro gelek rê û rêbaz hene ku em zimanê xwe ferbibin.

Cengiz, tenê gotina stranan jî qayil nabe, her wiha di stranan de çi tê gotin, ji bo çi hatiye çêkirin û dîroka wan jî gûhdaran ra yek bi yek parve dike. Derbarê wê da jî mebesta xwe wiha tîne ziman: "Kesên ku tên min gûhdar dikin, piraniya wan ciwan in. Ez dixwazim hişmendiyekê dîrokî bidim wan kesan. Gava ez strana Zembilfiroş dibêjim, ez dixwazim wê destana qadîm jî bidim nasîn."

